Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 53

15'ê December

Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Piştevaniya Berfireh Ya Xelkê Kurdistana Îranê Ji PDK Îranê

Piştî ku hejmarek endamên berjewendîxwaz di roja 06.12.2006'an, cudabûna xwe ji refa xebatkarên PDK Îranê îlan kirin, civatên xelkê Kurdistana Îranê bi awayekî berfireh piştgiriya xwe li partiyê nîşan dan.

**Agahiyên berfireh di vê derbarê de li ser malpera me bixwînin ...**

Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê:

# "Dîroka neteweya kurd û PDK Îranê, xebat û fîdakariyên Pêşmergeyan di derbasbûyî û qonaxa niha de tomar dike û cihê wan girûp û taqimên cudabûyî jî diyarî kiriye û dê diyarî bike"

Beyannameya Komîteya Navendî Ya PDK Îranê



2

Daxuyaniya Binyata Dr. Qasimlo, Ji Bo Lêkolîn Û Geşepêdayîna Siyasî Û Rêxistinî




2

Peyama Kekê Mistefa Hicrî, Bi Hinceta Cudabûna Hejmarek Ji Kadro Û Pêşmergeyan Li PDK Îranê



3

Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê derheq rapora "Baker – Hamilton" de



4

Peyamên Piştgirî Ji PDK Îranê Bi Hinceta Cudabûna Hejmarek Ji Kadro Û Pêşmergayan Li Partiyê

5

Sosyolojıya Cıvak Û Edebıyata Kurdî



8



Pîroz be 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyê Kurdistanê

## Pêşmerge Milê Bi Qawet Yê Gel E

Fîlma "Firmêskên Bêxal" Beşdarî Festîvala Fîlmên Kurdî Li Londonê Dibe




Rûpela 8

**Adar Jiyan:**

**"Heta ku zimanek nebe zimanê zanîn û perwerdehiyê û ber û berhemên cur bi cur bi wî zimanê neyên nivîsandin, yekîtiya wî zimanî pêkan nabe"**



Rûpela 10-11

# Beyannameya Komîteya Navendî Ya PDK Îranê

**Hevwelatiyên hêja!**
**Civatên azadîxwaz yên xelkê Kurdistanê!**

**Endam û alîgirên xebatkar yên PDK Îranê!**
**Partî û rêxistinên siyasî!**
**Dost û dilsozên tevgera kurd!**

Di rewşekê de ku pêvajoya bûyerên herêmê di berjewendiya Kurdan de diçe pêş û aso û pêşeroja xebata azadîxwazane ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê geş û rontir dikeve berçav, di vê dema hesas û hestyar de ku rejîma Komara Îslamî li hundir û derve de ketiye bin zext û givaşê tevgera Kurd, ji hemû demekê bêtir hewcehî û pêwîstî bi yekîtî û yekrefiyê heye, mixabin hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê serbarê hemû dilfirehiya rêberiya partiyê û cehd û tekoşîna dost û dilsozên Kurd, nemaze du hêzên me yên bira, Partiya Demokrat ya Kurdistanê û Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê ji bo mana vê komê di nava refên PDK Îranê de, ji bervar 15.09.1385'ê Rojî, hemberî 06.12.2006'ê Zayînî, bi derkirina beyannameyekê cudabûna xwe ji Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê îlan kirine.

PDK Îranê serbarê xuyakirina pênexweşbûna xwe ji helwesta van birayane, radigehîne ku rêberiya partiyê piştî çendîn civînan û bas û gotûbêj li ser daxwaza wan û heta qebûlkirina beşeke berbiçav ji daxwaziyên wan – her çend ne rewa jî bûbin - di rêya parastina hevxebatî û yekrefiya partiyê de liberçav hatine girtin, bi vî halî jî ev hejmare ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê ji dilfirehî û merema pak ya rêberiya partiyê mifaheke xirab wergirtin û roj bo rojê hêcet û mihaneyên cur bi cur û şert û pêşmercên nû ji bo diyalogê dianîn holê û daxwaza dawî ya rêberiya partiyê ji bo civiyan û domandina gotûbêj û diyalogan bi armanca çareserkirina wan pirsgirêkên ku bi xwe ji roja piştî bi dawî hatina Kongireya Sêzdehem ve ji bo partiyê çê kirin û car bo carê zêdetir û berfirehtir kirin, ret û mande kirin, hetanî wî cihî ku bi kiryar refa xwe ji PDK Îranê cuda kirin û niha jî ew cudakirine bi fermî îlan kirine û bi ser partiyê de sepandine.

**Ezîzno!**

PDK Îranê, partiya **Pêşewa Qazî Mihemedê nemir** û **Dr. Ebdulrehman Qasimloyê Rêber** û **Dr. Sadiq Şerefkendiyê zana**, di pêvajoya xebata 61 saliya xwe de gelek caran tevî rewşeke bi vî awayî berbirû bûye, gelek caran ev rêberên me yên şehîd bi awayên cuda cuda hatine



tometbarkirin û heta hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê di dema jiyan û rêberîkirina wan de refên partiyê bi cî hêlane û nav û natore ji wan dane. Lê her wekî wan rêberane bi xwe emir kirine, ev partiye bi van cure helwest û lêveqetiyanane jar nebûye û lawaz jî nabe û di bin tu zext , givaş û berpêng û astengpêkanînekê de ji pêvajoya demokaratbûn û pirensîpên demokartîk ên xwe dûr neketiye û dûr nakeve. Xuya ye piştî şehîdbûna wan rêberane jî ecêb nîne ku dirêjederên rêya wan tevî van cure helwest û jêveqetiyanane rû bi rû bibin. Lê bi domandina rê û rêbaza wan rêberên şehîd ji aliyê rêvîngên wan û bîr û ramanên hûr û rastbîn yên civatên xelkê Kurdistanê, hemû carekê rastî û dirustî derketine û vê carê jî xelik bi çaveke vekirî dinêrîne rastî û dirustiyan û gelek zû hest pê dikin ku rêberiya partiyê çi dilsozî û dilfirehiyek bona parastina hevxebatî û yekrefiya partiyê ji xwe nîşan daye, kê li ser ji hevcudabûnê û nehêlana pêvajoya gotûbêjan bi armanca çareserkirina wan arîşe û pirsgirêkên ku bi neheq û narewa ji bo partiyê hatin pêkanîn, tekezê dike û bi îsrar bûye û heta kê taba wan hemû karnekirin û berlêgirtin ji ber bi pêşveçûna pêvajoya tekoşîn û xebata partiyê kiriye?

Serbarê vê çendê ku em bi vê helwesta ku hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên berê yên partiyê girtine ber xwe, aciz û nerehet in, hemû hewl û tekoşîna me di pêvajoya xebatê de bi hemû awayên wê tenê û tenê rû ji Komara Îslamî ya Îranê wekî dujmin û zevtkerê maf û azadiyên neteweyên Îranê û xelkê Kurdistanê dibe.

Siyaset û helwesta PDK Îranê di pêşerojê de jî her li ser vê pêvajo û rêbazên dibe ku hetanî niha rêberên me yên mezin û şehîd **Qazî**, **Qasimlo**, **Şerefkendî** hebûne û li ser wan bi îsrar bûye û niha jî ev rêberene di bîr û ramanê me de zindî û bi me re ne.

***Silav li canê paqij yê wan şehîdên me û tev şehîdên gel û partiyê***
***Silav li malbatên birêz yên şehîdan û hemû girtiyên siyasî***
***Silav li xelkê xebatkar û qehreman yê Kurdistanê, piştevan û piştgirê herdem yê Partiya Demokrat***
***Silav li endam û xebatkarên Partiya Demokrat û rêvîngên rêberên me yên serbilind û şehîd, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî***
***Silav li Kadro û Pêşmergeyên Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê***
***Silav li Partiya pêşeng û xweştevî ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê, Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê***

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Komîteya Navendî**
**15.09.1385**
**06.12.2006**

# Daxuyaniya Binyata Dr. Qasimlo, Ji Bo Lêkolîn Û Geşepêdayîna Siyasî Û Rêxistinî




Bi xweşî ve, em avabûna Binyata Dr. Qasimlo, ji bo lêkolîn û geşepêdayîna siyasî û rêxistinî îlan dikin.

Di midehê jiyana siyasî ya xwe de, Dr. Qasimlo, sembola zansit, pêşkevtinxwazî, bîra rasiyonal(hişyarane) û rêbereke xwedî bername û stratejiya rohn û zelal bû. Her çend ku tejîkirina cihê vala yê Dr. Qasimlo nemumkin e, lê ji bo pêkanîna civateke tevgir weke wî rêberê leheng, aliyê kêm komkirina çendîn yeke û aliyan hewce ye. Ji aliyeke din ve, bûyerên Kurdistanê, guhertinên civaka kurdewarî û bûyerên cîhana derdora me, hewcehî û pêdiviya xwe amadekirina nifşa nû ji bo xwe rêxistin li gor pêwîstiyên sedsala cîhanîbûnê(gilobalîzmê) rojevtir dike.

Ji bo naskirin û geşepêdayîna bîr û ramana nûxwazane ya Dr. Qasimlo û bilindhilgirtina buhaya şirove û dahûrandina zanstî û herwiha haydana ciwan û nûgihîştiyên Kurd û ji bo xwendin û xwepêgehandina siyasî û rêxistinî, Binyata Dr. Qasimlo, hewcehiyeke dîrokî ya civaka Kurdewarî û domkerên rêya vê xwendingeha mirovahî û hesta neteweî ya gelê Kurd e.

**Armancên Binyata Dr. Qasimlo:**

1- Kom û belavkirina hemû gotin, nivîs û wêneyên Şehîd Dr. Qasimlo.

2- Danîna xelata Dr. Qasimlo, ji bo baştirîn lêkolîn, berhemên hunerî, wêjeyî, siyasî, zanstî û pirojeyên rêxistinî.

3- Encamdana lêkolînan di warên rêxistinî, siyasî, civakî, navneteweyî û hemû aliyên ku pêwendîdar in bi pêşeroja gelê Kurdistanê û PDK Îranê.

4- Belavkirina encam û netîceyên lêkolînan ji bo navendên pêwendîdar.

5- Pêkanîna semînar, civîn û kombûnên cur bi cur ên perwerdehî û zansitî li ser navê avakirin û damezrandina gotûbêja hindurîn a Kurdan û geşepêdana hemwariya siyasî li tevgera neterweyî ya gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê.

Di paşerojeke nêzîk de em dê pirojeyên nihayî yên Binyata Dr. Qasimlo di malpera binyatê de ku li bin amadekirinê de ye biweşînin.

Binyata Dr. Qasimlo, ji bo lêkolîn û geşepêdana siyasî û rêxsitinî
**qasimlu.foundation@gmail.com**
**11.12.2006**

# Peyama Hevalê Hêja, Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê Partiyê Bi Hinceta Cudabûna Hejmarek Ji Kadro Û Pêşmergeyan Li PDK Îranê

***Hevwelatiyên birêz!***
***Civatên xelkê Kurdistanê!***
***Endam û alîgirên mandînenas yên Partiya Demokrat!***
***Malbatên serbilind yên şehîdan û girtiyên qehreman yên siyasî!***
***Pêşmergeyên dijminbez ên gel û partiyê!***
***Partî û rêxistinên siyasî yên Kurdistanê!***

Di rewşekê de ku herêma me avisê guhertinên nû bi vêc û qazancê gelên bindest e û tevgera neteweyî ya kurd hewcehî bi yekrefî, tebayî û hevhelwestiyê heye, di rewşekê de ku guhertinên hundirîn û herêmî û navneteweyî bi giştî di berjewendiya Kurdan û bizava demokratîk û xebata berheq û rewa ya Kurd diçe pêş û aso û pêşeroja xebat û serkevtinê ji her demeke din rontir û zelaltir tê berçav, mixabin hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên berê yên partiyê, di daxuyaniyekê de bi awayekî fermî cudabûn û veqetiyana xwe ji partiya pêşeng a gelê kurd, PDK Îranê, îlan kirin.

Pêkhate û hêvêna van kome Kadroyane pêkhatiye ji wan Kadroyên ku di Kongreya 8'an ya partiyê û di serdemê rêberîkirina rêberên me yên şehîd, Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî de refên partiya me bicî hiştin û çend kes ji wan kesên ku di Kongreya Sêzdehem ya partiyê û di hilbijartineke demokratîk de dengê pêwîst û hitbarê yê Kongrê ji bo endambûna Komîteya Navendî neanîn.

Ev cudabûne di halekê de qewimî ku rêberiya partiyê û ez bi xwe bona hestkirin bi berpirsiyariyê û hesasbûna rewşa Kurdistan û Îranê, serbarê:

-Karnekirin û hêcet û mihanegirtina vê komê ji Kadroyên partiyê li pey encamên hilbijartinan di Kongreya Sêzdehem

-Bezandin û binpêkirina hêlên sor yên partiyê li ser bingeha siyasî û rêxistinî

-Pêkanîna rêxistina hember (muwazî) di nava refên partiyê de

-binpêkirina Pêrewa hundirîn ya partiyê û ayînnameyên Komîteya Navendî ku heta berî Kongreya Sêzdem û di dema desthilatdariya xwe de pejirandibûn

Bi hebandin û awayekî serxwe bi wan re riftar û livîn hatiye kirin û daxwaziyên wan – ji bilî wan xal û bendên ku pêrewa hundirîn rê pêre nedaye yan kêrhatîbûn û desthilata Komîteya Navendî û Deftera Siyasî biriye bin pirsiyarê – ji aliyê partiyê ve hatine qebûlkirin û rêya gotûbêjê tevî wan nehatiye berbestkirin.

Bi kurtî rêberiya PDK Îranê û dost û dilsozên partiya me ya xebatkar, hemû rêyeke hêja û jêhatî girtin ber xwe, heta van birayane ji wê helwesta ku tu qazancekê nagihijîne tevgera Kurd û partiya me ya xebatkar, poşman bikin, lê mixabin hemû ew cehd û hewlane nekarîn kar bikin ser viyan û îradeya cudayîxwaziya vê koma Kadro û Pêşmergeyên berê yên partiya me.

Bêguman bicîhêlana refên partiyê ji aliyê her kes û her hejmarek ji hevalan ve, ji bo tev aliyekê bi giştî û nemaze ji bo xebatkarên Partiya Demokrat, cihê kul û keserê ye û di vê rewşê de helwesta veqetiyan û cudabûna wan hevalane nexweştir û bandorên wê ên xirab jî ji bo tevgerê zêdetir in.

**Ezîzino!**

Eva ne cara yekemîn e ku veqetiyan di nava refên partiyê de tê holê, belkî berê jî û piştî hatine ser karê rejîma Komara Îslamî û di serdemê jiyan û xebata rêberê me yê mezin de, partiya me berbirûyê 2 bûyerên bi vî awayî bûye, lê piştî her cudabûnekê û kosp û astengên ji wana mezintir jî, rêvîngên rêya pîroz a şehîdên me fêr û hîn bûn ku rêyê nedin qamet û bejna bilind ya vê partiyê biçeme û bi karê berdewam û hêz û şiyana şoreşgerane, ji bo çiyayên serkêş û bilind yên xebat û newestiyanê de tevbigerin û heta bidestveanîna armanc û hêviyên bilind û pîroz yên neteweya me li Kurdistana Îranê çirke û demekê ji dest nedin. Ez piştrast û arxayîn im vê carê jî bi pêrewî ji rasparde, şîret û rênûmayiyên rêberên me yên şehîd, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî û bi hevkariya berfireh û bêdawî ya civatên xelkê Kurdistanê, bi hêz û qaweta bêdawî ya Kadro û Pêşmergeyên can li ser dest û endam û tagirên me yên fîdaker û xwegorîker, serê partiyê her serfiraz û bilindtir dibe û dilê dost û hevalan şa û kêfxweş.

Bi vî awayî ez hemû azadîxwazên Îranê, civatên xelkê Kurdistanê û dost û dilsozên neteweya xwe piştrast dikim ku PDK Îranê her wekî caran qahîm û xurt di cihê xwe de ye û dê ji dost û dijmin re bide xuyakirin ku li niha û pêşerojê de dê rol û bandoreke berbiçavtir, girîngtir û cihwartir di pêvajoya xebata Kurd de bilîze û îtibar û pirestîja ku heye dê biparêze û payebilindtir bike.

Di vê dema hesas de ez daxwazê ji civatên xelkê Kurdistanê, piştevanên herdem û heta ser yên Partiya Demokrat dikin ku bi hêviyeke bilind û mezin di xebatê de berdewam bibin û bi piştgirîkirin ji PDK Îranê piştrast bin, her wekî ku partiya wan ya xweştevî bi piştgiriya wan xatircem û bênigeran e.

Çavnihêriya me ji Kadro û Pêşmerge û endam û alîgirên partiya me eva ye ku bi karê bêtir, fîdakariya pitir, îman û baweriya xurt û qahîmtir mil bidin ber wan erk û wezîfeyan ku ji wan re hatiye diyarîkirin û sipartin. Bêguman dîroka partiyê û tevgera gelê me her wekî kar, xebat û fîdakariyên wan yên derbasbûyî tomar kiriye, êş, elem,



zor û zehmetî û fîdakariyên vê qonax û dewranê dê zeq û berçavtir ji bo wan tomar bike û cih û warê wan girûp û taqimane jî diyarî kiriye û dê diyarî bike ku di dem û çaxên hesas de pişt li Partiya Demokrat, partiya xweştevî û berdilê gelê Kurd dikin.

**Xûşk û birayên min ên hêja!**

Ez bi hewce dizanim bi navê PDK Îranê vê rastiyê jî bidim eşkerekirin ku em xwe bi dijminê wan hevalên xwe yên cudabûyî nizanin û amade ne têkiliyeke dostîniyê tevî wan ava bikin. Lê çawanî û şeklê vê pêwendiyê jî girêdayî bi helwesta wan li hember tevger û bizava Kurd û liv û tevgeriyana wan bi PDK Îranê re ye.

Di dawiyê de ez bi pêwîst dizanim spas û pêzanîna PDK Îranê ji tev wan partî, kesayetî, dost û hevalan re bigehînim ku di vê pirsgirêkê de li qise û gotina xêr û dilsozî û şîret û rênûmayîkirinan xwe neparastin û dirêxî nekirin.

Spas ji bo wê hemû dilsozî, dilnigeranî û xebat û hewildanên endamên partiyê li hundirê welêt û derve ku di heyamê çendîn mehên borî de bi têkiliya rasterast û ne rasterast, xwestin pêşiya qewimîna vê bûyerê bigirin, lê mixabin bi encama xwe ya dilxwaz negihîştin.

*Silav li canê paqij yê rêberên şehîd ên me, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî û tev şehîdên Kurdistanê*

*Silav li malbatên birêz yên şehîdan û hemû girtiyên berxweder ên siyasî*

*Silav li xelkê xebatkar û azadîxwaz yê Kurdistanê, piştevanên hergav yên Partiya Demokrat*

*Silav li* endam, alîgir, Kadro û Pêşmergeyên Partiya Demokrat

*Serkeve xebata neteweyî – demokratîk ya gelê Kurd bi rêberiya PDK Îranê*

*Mirin û neman ji bo rejîma azadîkuj ya Komara Îslamî a Îranê.*

***10.12.2006***
***19.09.1385***

# Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê derheq rapora "Baker – Hamilton" de

***Welatiyên hêja!***

***Xortên fîdakar yên neteweya Kurd!***

Aqibet piştî demeke heta radeyekê dirêj, Komîsyona/Lijneya Amerîkî ya naskirî bi "Baker – Hamilton" ya ji bo niraxandina rewşa Îraqê û peydakirina rêyên çareseriyan bo ji nav birina arîşe û pirsgirêkên serek û bingehîn ên vî welatî hate belavkirin û kete ber çavê rêberên Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê û raya giştî ya cîhanê.

Dema mirov bala xwe bide naverok û kakila vê raporê û li bendên vê dinihêre, derdikeve holê ku vê raporê bêtir ji vê çendê ku giringî dabe pêvajoya demokratîk li Îraqê û peydakirina çavkaniyên bingehîn ên van pirsgirêkane, giranî û nirx yê daye awayên kêmkirina arîşe û pirsgirêkên Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê li Îraqê. Lewra di vê raporê de desthilata hikûmeta Navendî bihêztir û berfirehtir hatiye kirin û desthilat û kêrhatîbûna Hikûmeta Herêma Kurdistanê hem di warê siyasî û hem di warê aborî de berteng hatiye kirin û qanûn û pirensîpên têkildar bi hikûmeteke federal di Îraqê de dibe bin pirsê. Cuda ji vê çendê, çareserkirina pirsa Kerkûkê û cî bi cîkirina madeya 140'an hatiye dûrxistin û arîşeya limêjîn ya Kerkûkê bi awayê niha dihêle, eva jî ne dûr e ku arîşe û pirsgirêkên zêdetir û nûtir jê bikeve.

Di vê raporê de girîngî û bihayeke berçav û xuya ji bo dîtin û ramanên welatên cîran di der barê Îraqê de hatiye dayîn ku eva jî tevî baldan bi helwesta welatên cîran, li hember demokrasî li Îraqê û misogerkirina mafên Kurd di vê welatî de dikare him ji bo çarenivîsa Îraqê û him mafên Kurdan û aliyên din yên Îraqî bi tirs û xeterê re rû bi rû bike ku




**Rapora "Baker – Hamîlton"tevî nerazîbûna xurt ya Kurdan berbirû bû**

bêguman ji bo azadîxwazên Îraqê û gelê Kurd di vî welatî de bi hêsan û sanahî nahê pejirandin. Xasma ku rejîmek wekî Komara Îslamî ya Îranê di tu rewşekê de hazir nabe ji maytêkirin û destêwerdan di nava kar û barên hundirîn yên Îraqê û zêde û berfirehkirina kiryarên terorîstî û haydana deste û girûpên radîkal û tundrew di vî welatî de dest berde, lewar ye bi liberçavgirtin û girîngîdan bi nêrîn û helwesta rejîmeke bi vî awayî li hember pirsên Îraqê, alîkarîkirin bi xurtbûn û pêşdebirina fitne û dubendîxistinên vê rejîmê li Îraqê ye, neku dawî pêhatina rewşê.

Bi giştî ev rapore ne li ser binemaya xwezî û daxwazên gelên Îraqê, belkî li ser bingeha awayê kêmkirina arîşe û pirsgirêkên Amerîka di kirîza niha ya Îraqê de hatiye darêtin û nikare ji bo xelkê Îraqê bi giştî û nemaze ji bo gelê Kurd di vî welatî de cihê qebûlkirin û razîbûnê be.

Di vê derheqê de hêja ye hemû azadîxwazên herêmê, bi taybet xelkê Kurdistanê, bîr û nêrînên xwe li hember naveroka vê raporê bînin rojevê.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, bi liberçavgiritna kêmasî û qusûriyên rapora naskirî bi "Baker – Hamilton", hêvî dike hikûmeta Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê û nemaze Serok Komarê wî welatî bi çaveke vekirîtir ji rastiyên têkildar ên Îraqê re binêre û şekl û şêwazekê peyrew nekin (birêve nabin) ku kêmkirina pirsgirêkên li Îraqê bi buha û qîmeta ji nav birina maf û azadiyên xelkê wî welatî bi dawî be û gêre û kêşe jî ne tenê çareser nebin, belkî aloztir û kûrtir bibin. Eşkere ye ku azadîxwazên herêmê çavnihêriya vê çendê dikin ku Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê û hêzên hevalbend çawa ku di pêvajoya hilweşandina rejîma dîktatorî di Îraqê de ektîv û bibandor bûn, her bi vê hogiriyê jî alîkarê pêşdeçûna pêvajoya demokrtasiyê di vî welatî de û misogerbûn û cîbicîbûna maf û azadiyên wan bibin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**12.1.2.2006**

**21.09.1385**

# Daxuyaniya YXDK Îranê Bo Eyankirina Piştevaniya Xwe Ji Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê

**Xwendekarên xebatkar yên Kurd!**

**Xwendekarên azadîxwaz li çepera zanîngehan!**

**Xelkê xebatkar û mafxwaz ê Kurdistanê!**

Di halekê de ku rejîma kevneperest a Komara Îslamî û sîstema nezanî û tarîtiya "Welayeta Feqîh" Di bin şûnwarên fakterên navneteweyî û herêmî û domkirin û xurtbûna bizava demokrasîxwazî û dadperweriyê, xwastên gelên zulmlêkirî yên Îranê roj li pey rojê ber bi qeder û çarenivîsa neman û jinavçûnê gavan hildigire û di vê qonaxa çarenivîssaz û hesas a xebata Kurd de ku hevpeywendî, yeketî, yekrefî û xebata gelên çewisayî û kanalîzekirina karîn û şiyana Partiyên Siyasî û aliyên cur bi cur yên civakî, fakterên sereke ji bo dawîanîn bi jiyê desthilatdariya serberedayî ya Komara Îslamî ne, qat û civatên xelkê xebatkar yên Kurdistanê di heyamên çend rojên borî de şahidê cudabûn di nava refên PDK Îranê de ji aliyê hejmarek ji endamên vê partiyê ve bûn. Vê cudabûnê di medya û ragihandinên giştî de deng veda û xelkê xebatkar û mafxwaz yê Kurdistanê nîgeran kir.

Bi li berçavgirtina rewşek wiha, xuya ye ku gavavêtin bona ji hev veqetiyan û cudabûn ji refên xebatkarên PDK Îranê ji aliyê vê girûpê ve û meşandina kiryarek wiha tenê li ser bingeha dûrbûn ji rastiyên niha û red û mandelkirina bîr û raya giştî ya civatên neteweya me pêk hatiye û cehda vê girûpê ji bo vê yekê ye ku rastiyan li pêxem hêviyên nerewa yên xwe û tenê di rêya berjewendiyên takekesî yên xwe de bin pê bikin.

Bi berhevdan û dahûrandina me, pêkhate û pêşîneya vê girûpê eyankerê vê rastiyê ye ku cehd û tekoşîna wan ji bo derbelêdan bi hitbar û pirensîpên PDK Îranê û guherîna xebata neteweyî – demokratîk a neteweya Kurd ji bo bizaveke bê nasname û bêkakil û vala bû.

Yekîtiya Xwendekarên Demokrat a Kurdistana Îranê, her wekî di bername û progrema vê yekîtiyê de îşare pê hatiye kirin, piştevanî û pişikdariya çeleng di bizava netewî – demokratîk a neteweya Kurd di çarçoveya armancên sereke yên xwe de daniye û li gor rê û cih û bingehên xwe, perdehilgirtin ji vê kiryarê û pêşgirtin ji xelitandina bîr û raya giştî û eşkerekirina kakila vala û oportanîstî ya vê girûpê bi erkê sereke yê xwe dizane û ev cehda xwe bi gaveke dîrokî ji bo alîkarîkirina bizava neteweyî – demokratîk a neteweya Kurd dizane.

Bi vî awayî ji hemû xwendekarên Kurd weke pêkhateya sereke ya bizava rewşenbîrî û wijdana hişyar û nebza siyasî – civakî a civaka Kurdistanê, daxwazê dike ku di vê derheqê de rola dîrokî a xwe bilîzin û bi mifah wergirtin ji pêwendiyên dînamîkî bi qatên cur bi cur yên xelkê re û piştevanî ji PDK Îranê Kongireya 13'an ya vê partiyê weke çavkaniya rewatîdan bi rêveberî û pêkhateya rêxistinî ya wê, hewl û piştevanê bizava neteweyî – demokratîk a gelê me bin. Bêguman PDK Îranê bi li berçavgirtina pêşketên dîrokî yên xwe di pêvajoya xebata neqetiyayî a xwe de û bi çavkanî wergirtin ji




rêberên şehîd, **Pêşewa Qazî Mihemed** , şehîdê hertim sax **Dr. Qasimlo** û şehîdê zana **Dr. Sadiq Şerefkendî** û bi piştrastbûn bi samana rastîn a xwe ku piştevanî û alîkariyên cur bi cur yên civatên xelkê Kurdistanê ye. Herwiha rola pêşeng û şoreşvaniya xwe bo rêberîkirina bizava neteweyî – demokratîk a neteweya Kurd li dijî kevneperestiya Melayan û heta hiloşandin û ji navbirina bi tevahî a rejîma desthilatdar dê bidomîne.

*Serbilind be Partiya rêberên şehîd, PDK Îranê!*

*Silav li wijdana hişyar a xelkê Kurdistanê!*

*Silav li xwendekarên xebatkar!*

**Yekîtiya Xwendekarên Demokrat a Kurdistana Îranê**

**19.09.1385**

**10.12.2006**

# Daxuyanî Û Peyamên Piştgirî Ji PDK Îranê Bi Hinceta Cudabûna Hejmarek Ji Kadro Û Pêşmergayan Li Partiyê

Xwendevanên hêja! Piştî ku roja 06.12.2006'an hejmarek ji endamên partiyê refên xwe li PDK Îranê veqetandin, civatên xelkê Kurdistana Îranê li hemû bajarên Kurdistanê, Komîte û Rêxistinên partiyê li derveyî welat, Turkiyê, Kurdistana azad û herwiha çend partî û rêxistinên parçeyên din yên Kurdistanê ew kiryar şermezarkirin û piştevaniya xwe ji PDK Îranê nîşan dan. Ji ber kêmbûna cih em nikarin ku hemû peyam û daxuyaniyan biweşînin. Hûn dikarin tevaya peyam û daxuyaniyên di vê derbarê de li ser malpera Agirî bixwînin.

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

## Dxuyaniya Komîteya PDK Îranê Li Birîtaniyayê Derheq Cudabûna Parek Ji Kadro Û Pêşmergeyan Li PDK Îranê

Civatên rizgarîxwaz ên Kurdistanê!
Endam, alîgir, Kadro û Pêşmergeyên tekoşer!
Malbatên serbilnid ên şehîdên PDK Îranê!

Her wek hûn agehdar in, mixabin roja 06.12.2006'an ya Zayînî hemberî 15.09.1385'an ya Rojî, parek ji Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê ku para herî zaf ya wan her ew kes bûn ku berê û li dema rêberayetiya serdarê demokrasiyê û darêjer û siyasetgêrê cîhanbîniyê, Dr. Qasimloyê nemir de jî bi qazancê xwe derbe ji peykerê PDK Îranê dabûn, niha jî bi belavkirina daxuyaniyekê rêbaza xwe ji rêbaza PDK Îranê cuda kirine.

Eva ku eşkere ye, eva ye ku li dîroka tejî li evraz û nişîv a xwe de PDK Îranê bi caran rastî pirsgirêkên han hatiye û sebeb jî vedigere ser berjewendî û kursîxwaziya deste û taqimekê. Her çend ku binpêkirina biryarên kongireyê vê carê jî birînên kongireya 8'emîn a PDK Îranê vejandin û dilê civatên xelkê Kurdistanê, endam, alîgir û Pêşmergeyên dilsoz û biemeg birîndar kir, lê eva nabe sedema lawazbûn û serxwarbûna PDK Îranê û tu bandorekê naxe ser hewl û çalakiyên siyasî yên partiyê.

Li vir de weke Komîteya PDK Îranê li Birîtaniyayê, em hemû cure berjewendî û kursîxwaziyan mehkûm dikin û piştevanî û wefadariya xwe li rêberayetiya PDK Îranê ku Kongireya 13'hemîn a partiyê rewayî pê daye, îlan dikin û civatên dilsoz ên xelkê Kurdistanê hêvîdar dikin ku di pêvajoya kar û xebata me de qe tu tiştek kêm nabe û hemû hewl û tekoşîna me, xebata dîplomasiyê li çepera nûjen a demokrasî û mafxwaziyê di cîhana îro deye . Bi hêvî û piştevaniya we gelê dilsoz ê Kurdistanê û partiya me ya xweştevî hizr û ramanên demokrasiya xwe ji bo pêçdeçûn û pêşeroja partiyê bihêztir dikin.

Ciwanên demokrat yên îro, tu car rê nadin ku careke din qazanc û desthilatxwazî, partiya me rastî qeyran û jihevqetiyanê bike. Divêt ku em hemû bi hev re hewl bidin PDK Îranê çi demê ber bi radîkalîzmê nevegere. Ji ber ku paşdeçûn û binpêkirina biryarên Kongireya 13'hemîn dibe sedema xwekujiya siyasî ya siyasetvanên 61 sal xebat di pêxema serbestî û rizgariyê de û tenê neyar û dijmin pê şad dibin.

**Bijî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Serkeve rêberayetiya Kongireya 13'hemîn a PDK Îranê**
**Mirin û neman bo neyarên gelê Kurd**
**PDK Îranê – Birîtaniya**
**08.12.2006**

## Daxuyaniya Komîteya Partiya Demokrat Ya Kurdistana Îranê Li Welatê Fînlandê Li Dor Îlankirina Cudabûna Parek Ji Kadro Û Pêşmergeyên Partiyê

**Hevwelatiyên rêzdar!**
**Endam û alîgirên PDK Îranê li welatê Fînlandê!**

Di rewş û zirûfa niha ya herêmî, navneteweyî û hundirîn a tevgera neteweyî ya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de, ku hewcehî bi yekîtî û yekrefiyê heye, mixabin hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê rêya xwe ji PDK Îranê cudakirin û bi vî awayî careke din cudabûn bi ser partiya me de dane sepandin.

Komîteya PDK Îranê li welatê Fînlandê, serbarê eyankirina nerazîbûna xwe ji helwesta hejmarek ji hevalên me yên berê, xwe emegdarê siyaset û rêbaza PDK Îranê, partiya Pêşewa Qazî Mihemed, Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî dizane û îlan dike ku dest ji birêvebirina erkên xwe yên partiyê naberde û xebata xwe ji bo nasandina bizava gelê Kurd ji bo raya giştî ya cîhanê û rêxistinên dost ên demokrat, didomîne.

Di vê rewşê de xebat li dijî rejîma Komara Îslamî ya Îranê û nasandina naveroka dijî gelî a vê rejîmê tenê erkê dirêjîderên rêbaza rastîn a PDK Îranê ye.

Em daxwazê ji endam û alîgirên PDK Îranê dikin ku ji bo wergirtina zanyariyên zêdetir bi vê E-mailê û van hejmar telefonane pêwendiyê bigirin. 0407271023 – 0449156975 – 0442805692 – 041511448782 – 0407709803 – 0414984503 – 0504134189

E-Mail: pdki.finland@gmail.com

Silav li canê paqij yên rêberên me yên şehîd û hemû şehîdên gel û partiyê
Silav li hemû malbatên serbilind ên şehîdan û girtiyên siyasî
Silav li xelkê xebatkar û berxweder yê Kurdistanê ku hertim piştevanê Partiya Demokrat bûne
Silav li endam û tekoşerên Partiya Demokrat û rêvîngên rêberên serbilind û şehîdên me Qazî, Qasimlo û Şerefkendî
Silav li Kadro û pêşmergeyên PDK Îranê
Silav li partiya xweştevî û pêşeng ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê, PDK Îranê!

**Komîteya PDK Îranê li Fînlandê**
**06.12.2006**

## Daxuyaniya Komîteya Ustraliyayê Ya PDK Îranê Derheq Cudabûna Parek Ji Kadro Û Pêşmergeyên Partiyê

Hevwelatiyên hêja!
Endam û alîgirên PDK Îranê!

Li demekê de ku hevdengî û yekîtiya xebatkarên gelê me hewcehiyeke bi buha û dîrokî ye. Nemaze di rewşa îro de ku rejîma Kurdkuj a Komara Îslamî ya îranê ji aliyê civaka navneteweyî ve, hêdî hêdî asteng tê kirin û gelê Kurd jî li Kurdistana Îranê de çavê hêviyê bi xebatkarên demokrat û rêvîngên rêya Qazî, Qasimlo p Şerefkendî ve, girêdane, ji bo ku hemû hêz û karîna xwe di pêxema berjewendiyên gel de bixin ser hev û bi hevxebatî û yekdengiyê bi qzancê gel mifahê ji rewş û zirûfa rojê werbigirin. Mixabin hejmarek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê biryara cudabûnê dane û refên PDK Îranê bi cî hiştine.

Komîteya PDK Îranê li Ustraliyayê, hevdem tevî derbirîna xem û keserên xwe li hember bûyera han, emegdarî û piştevaniya xwe ji PDK Îranê, partiya Qazî, Qasimlo , Şrefkendî û hezaran şehîdên serbilind û hertim zindî yên gelê xwe îlan dike.

Bijî Kurd û Kurdistanê
Silav li Kadro û Pêşmergeyên biemeg ên PDK Îranê
Serkeve xebata rizgarîxwaz a gelê me, bi rêberayetiya PDK Îranê

**PDK Îranê – Komîteya Ustraliyayê**
**06.12.2006**

# Daxuyaniya Yekîtiya Jinên Demokrat Ya Kurdistana Îranê Ji Bo Piştgirî Ji PDK Îranê



**Jinên tekoşer û mafxwaz ên gelê Kurd!**

**Xelkê bi şan û şeref yê Kurdistanê!**

**Endam, alîgir, dost û heval û xebatkarên YJDK Îranê**

Di rewş û halekê de ku pirsa Kurd di asta navneteweyî û devera Rojhilata Navîn de qonaxeke pir nazik û qedersaz derbaz dike û herwiha rejîma kevneperest û dîktator a rejîma Îslamî ya Îranê di heyamê hemû desthilatdariya xwe de, di astê hundirîn, navçeyî û navneteweyî de ketiye bin zext û givaşê, hejmarek ji endamên partiyê di bervara 15’ê Sermaweza 1385’ê Rojî, hemberî 06.12.2006’ê Zayînî bi belavkirina daxuyaniyekê cudabûna xwe ji refên xebata PDK Îranê îlan kirin. Ev helweste bû sedema meraq û nîgeraniya xelkê xebatkar yê Kurdistanê û bi taybet jinên mafxwaz û azadîxwaz yên Kurdistanê.

PDK Îranê di dîroka 61 saliya temenê xwe de gelek caran tûşî van terze evraz û nişîv û astengan bûye, lê bi jêhatî û zanebûna rêberiya partiyê û dilsoî û berxwedaniya Kadro û Pêşmergeyên partiyê û piştgiriya bihêz ya civatên xelkê Kurdistanê û bi taybet jinên tekoşer yên Kurd, qurs û qahîmtir ji caran xebat û tekoşîna siyasî ya xwe domandiye. Bêguman vê carê jî Partiya Demokrat li vê ezmûna destçêkirî bi serbilindî dê der bikeve û em jî weke Yekîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê piştgiriya xurt û bihêz a xwe ji rêberatiya Kongireya 13’ehem ya partiyê radigihînin. Em li ser vê bawerê ne ku bi tekoşîna hemû aliyekê dikarin ku hêvî û xweziyên şehîdên gel û partiyê û li serveyî hemûyan, **Pêşewa Qazî Mihemed**, **Dr. Qasimlo** û **Dr. Şrefkendî** bi cih bînin û serkevtî bin.

**Silav li PDK Îranê, rêber û rêkxerê bizava gelê Kurd li Kurdistana Îranê!**

**Silav li jinên Kurd, piştevan û piştgirê xebata neteweyî ya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de!**

**Yekîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê!**
**17.09.1385**
**09.12.2006**

# Daxuyaniya Yekîtiya Ciwanê Demokrat Ya Kurdistana Îranê Di Pêwendî Tevî Cudabûna Komek Ji Kadro Û Pêşmergeyên PDK Îranê

**Civatên bişeref yên xelkê Kurdistanê!**

**Ciwanên biemeg û xweragir yên Kurdistanê!**

**Endamên tekoşer yên yekîtiya ciwanên Demokrat a Kurdistana Îranê!**

Di demekê de ku asoya hêviyên Kurdan û bidestveanîna mafên neteweyî ji hemû demekê rohintir e û Kurd mijûl e di herêm û cîhanê de giranî û hêza xwe bidestve tîne û bîr û hizra rizgarîxwazî û neteweyî geşe dike, netewa me zêdetir ji her demekê hewcehî bi hevkarî û yekdengiyê heye û zêdetir jî tekoşînê dike ku usûl û paramêtrên demokratîk biparêze, lê mixabin bo careke din nerîtperwerên ladan û cudabûnê û guhnedan bi usûl û pirinsîpên demokratîk, hawara cudahiyê dan û bo careke din rondikên hogirên azadî û alîgirên PDK Îranê û dayîkên şehîdan verandin û derbekî din li cendekê rêberê bizava netewî û demokratîk a gelê Kurd di Kurdistana Îranê dan.

Em wekê YCDK Îranê, tevî xembarbûnê li hember vê kiryarê, hevdem piştevaniya xwe ji partiya xweştevî a civatên xelkê Kurdistanê û rêberiya wê, ku domkerê rastîn yên şehîdên serwer (Rêber) û hemû şehîdên gel û partiyê ye, ducarî dikin û soz didin ku heya axir dilopa xweîna xwe hevçeper û piştevan û parêzerê wan nirx û bihayan bin ku bo heyamê 61 saliya vê partiyê pêşkêşî çanda siyasî û civakî ya wan dike.

YCDK Îranê ku diyariya hertim zindî a Komara Kurdistan û hevxebatê mil bi milê PDK Îranê ye, de îro pê de jî her bi vî awayî bimîne û rênîşander û şîretên reberên şehîd û rêberiya niha a PDK Îranê, çiraya rêya gihîştin bi demokrasî û mafên neteweyî bibe.

Gelî birêzan!

Dîrok çiqas mora erêkirin û piştevan jê derketin û cudabûnên berê li refên partiya xweştevî ya Kurdan di Kurdistana Îranê da û çiqas piştevanê dijberên rêberên şehîd yê me Dr. Qasimloyê zana, lêhatî bû, arxayîn bin vê carê jî her wisan dibe. Ji ber ku hizr û rûçikê evên ku ev kare kirin, her ev kesên berê ne û eva di demekê de ye ku evên îro pêşengiya rêya şehîdan girtine pêş xwe, rêvîngên rastîn û jêhatî yên wan rêberane û mezinterîn wane û dersên van rêberane ku (pakî û rastbêjî ye) wergirtine û kar û xebatê pê dikin.

Silav li PDK Îranê, partiya şehîdên serwer Qazî, Qasimlo û Şerefkendî

Serkeve bizava neteweyî û demokratîk a gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi rêberiya PDK Îranê

**Komîteya Birêveberya Giştî a Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê Kurdistan 16.09.1385**

# Daxuyaniya Komîteya Fransayê Ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê

**Hevwelatiyên rêzdar!**

**Xelkê biemeg yê Kurdistanê!**

**Malbatên serbilind yên Şehîdan!**

**Endam û alîgirên PDK Îranê !**

Serencam piştî du sal û nîvan kêmkarî û karnekirina beşek ji endamên partiyê û bêhurmetî bi dengê endamên partiyê û bi nameşrû naskirina rêberiya hilbijartî ya Kongireya sêzdehem, mixabin roja 15’ê Sermawezê (06.12.2006)’an, vê taqimê bi derkirina daxuyaniyekê, refa xwe ji Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê cuda kirin.

Ji bo me û hemû gelê Kurd eşkere ye ku di vê rewşa girîng û hesas de yekem hewcehiya Kurd yekdengî û yekîtî ye û tev veqetiyan û cudabûnek bê guman hêza xebatê lavaz û hêviya Kurd kêm dike, bi vê boneyê em pir xembar in ku hemû hewl û tekoşîna dilsojane û berpirsane ya rêberên partiyê nekarî merema vê girûpê li ser bi cî hêlana refên partiyê biguhere û wan ji vê biryarê ku piştî Kongira Sêzdehem li ser bi îsrar bûn, poşman bike.

Komîteya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li Firansayê, bi pêrewî ji bername û progirema partiyê û biryarên Kongira Sêzdehem, hemû aliyekê agehdar dike ku wek berê wefadar bi rêbaza Şehîdan, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî û gişt şehîdên serbilind yên gelê xwe û rêberiya hilbijartî ya Kongirê ji bo bidestveanîna hêvî û armancên gelê xwe û hilweşandina rejîma Komara Îslamî ya Îranê bi îmaneke zêdetir xebatê bikin û demekê ji xebat û tekoşînê narawestin.

Pêvajoya xebatê bi giştî û dîroka partiya şoreşger ya me, dehan bûyerên weke vê carê bi xwe ve dîtine û em piştrastin ku şoreş bi pêşve diçe û di pêşerojê de jî dîrok rehmê bi kesê nake û daweriya xwe dike.

Hewce ye ku li wir em daxwazê ji hemû endam û alîgirên partiyê, bi taybet li welatê Firansayê bikin, bi hest bi berpirsyarîkirin û liv û tevgeryana siyasî û Şaristaniyane û tekoşîna bê rawestan refên xwe ji caran qahîmtir û bihêztir bikin.

Bihiloşe rejîma dijî Kurd ya Komara Îslamî ya Îranê

Bijî Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, partiya şehîdan Qazî, Qasimlo û Şerefkendî û xweştevî û ciyê hitbar û baweriya gelê Kurd

Serbikeve xebata heqxwazane ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi rêberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Komîteya Firansayê**
**16’ê Sermaveza 1385’ê Rojê**
**7’ê Desambera 2006’an**

## Daxuyaniya Komîteya PDK Îranê Ya Rojhilatê Kanadayê Ji Bo Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê

**Tevî rêz û silavên germ û şoreşgerane**

Tevî xem û keserên giran ve, li rêya daxuyaniya Komîteya Navendî ya partiya me de, em haydarî xeber dilêşîn ya cudabûna taqimek ji Kadro û Pêşmergeyên Partiya xwe bûn. Bihîstina vê xebera ne bixêrê êş û janeke dijwar xiste can û dilan û car din kevne birînên ku hêdî hêdî dicebirîn, ji nû ve vejand.

Lê em xatircem û arxayîn in ku vê carê jî dê her weke carên din bi bawer bi xwe û hitbar bi gelê xwe û herwiha pêşdegirtina siyaseteke usûlî û dirust û dirêjî pêdana rêbaza rêberên hertim li yad de, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî di qada xebat û milmilanê de tevî dijmin û neyaran serbilind û serferaz bimîne.

Di dawiyê de tevî derbirîna nerazîbûna xwe li hember helwesta ne bi cî ya vê taqima hevrêyên pêşîn, em piştevaniya xwe li Kongireya 13'hemîn a PDK Îranê û tev biryar û rêberayetiya hilbijartî ya vê îlan dikin û hêviya serkevtinê bi ser astengên li ser rêya xebatê jê re dixwazin.

**Bijî Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**Yekgirtî bin refên PDK Îranê**

**Berdewam be rêya nemiran, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî**

**Tevî rêz û hurmetan**

**PDK Îranê – Komîteya Rojhilata Kanadayê**

**06.12.2006**

## Daxuyaniya Komîteya PDK Îranê Li Amerîkayê, Bi Hinceta Veqetiyana Beşek Li Kadro Û Pêşmergeyan Li PDK Îranê

Di rewşekê de ku tevgera rizgarîxwaz a gelê me bêtir ji her carê hewceyî yekgirtin û yekdengiyê bû, mixabin parek ji Kadro û Pêşmergeyên berê yên PDK Îranê bi belavkirina daxuyaniyekê veqetiyana xwe ji refên partiyê îlan kirine. Em li vir de vê helwesta van birêzane xesara tevgera rizgarîxwaz a gel dizanin û piştevaniya xwe ji PDK Îranê, partiya xweştevî û berdil a gelê Kurd û partiya Qazî, Qasimlo û Şerefkendî, radigehînin.

Silav ji PDK Îrabê, partiya pêşeng a gelê Kurdistanê

Silav li şehîdên Kurdistanê nemaze serkarwanên şehîdan, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî

Silav li malbatê şehîdan û girtiyên siyasî

Silav li Kadro û Pêşmergeyên qehreman ên PDK Îranê

**PDK Îranê – Komîteya Amerîkayê**

**08.12.2006**

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**01.12:** Roja cîhanî ya xebat li dijî nexweşiya "ÎDZ"ê.
**01.12.1983:** Di şereke dijwar di navbera Pêşmergeyên Hêza **Pêşewa** û hêzên rejîmê di gundên Xatûnbaxî û Ebdulava de, mixabin 7 Pêşmergeyên PDK Îranê bi navên: Îbrahîm Sohrabî, Îbrahîm Sipahî, Behmen Qazî, Rehîm Sofî, Qerenî Kitabî, Taha Şamihemedî, Mewlûd Rostemî şehîd bûn.
**02.12.1921:** Şoreşvanê welatparêz yê Bakûra Îranê "Mîrza Kûçekxanê Cengelî" koça dawiyê kir. Xwefiroşekê bi navê "Xalo Qurban" serê wî jê kir û radestî Şahê Îranê kir.

**02.12.1945:** Leşkerek Amerîkayê ku parek ji axa Îranê dagir kiribû, piştî bi dawî hatina heyamê diyarikirî, di konferansa Tehranê de biryar da ku ji axa Îranê paşekêşiyê bike.
**02.12.1996:** Mamosta Mela Mihemed Rehîmî xelkê parêzgeha Kirmaşanê bi awayekî gumanbar jiyana xwe ji dest da. Piştre hate eşkerekirin ku ev ji aliyê rejîmê ve hatiye kuştin.
**03.12.1989:** Di yekemîn Civîna Komîteya Navendî a PDK Îranê de piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo, Dr. Sadiq Şerefkendî wek Sekerterê Giştî yê PDK Îranê hate hilbijartin.

**05.12.1608:** Şerê Kela "**Dimdim**" dest pê kir û piştî domîna çend mehan ji vî şerî aqibet bi êrîşa leşkerê Şa Ebasê Sefewî tûşî têkçûnê hat û **Mîrê Lopzerîn** tevî şerkerên xwe şehîd bû.
**05.12.1946:** Bi Serokatiya Pêşewa Qazî Mihemed di Komara Kurdistanê de Şêwra Şer pêk hat.
**06.12.1945:** Yekemîn hejmara Kovara KURDISTAN li bajarê Mehabadê hate çap û belavkirin.
**06.12.1981:** 5'emîn Kongireya PDK Îranê hate lidarxistin û dirûşma hiloşîna Komara Îslamî ya Îranê hate pejirandin. Navê Kongirê Kongireya Şehîdan bû.

**06.12.2006:** Çend kes ji Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê ku mideheke dirêj bû xwe bi "Opozîsyon" dabûne nasandin, mixabin veqetiyana xwe ji PDK Îranê îlan kirin.

**07.12:** Roja Cîhanî ya Balafiriyê.
**07.12:** Roja Xwendekar di Îranê de.
**07.12.1987:** Seba teqîna bombeyeke çandî ji aliyê rejîmê ve, mixabin endamê rêberiya PDK Îranê, **Hesen Şêweselî** her du çav û destên xwe ji dest dan.

**08.12.1981:** Di şereke dijwar de rêzdar **Ehmed Cawîdfer** naskirî bi **Hejar** Endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê şehîd bû.

**08.12.1997:** Terorîstên rejîma Komara Îslamî ya Îranê di boseyekê de li Kurdistana Îraqê **Mensûr Fetahî** naskirî bi Seyîd Mensûr Nasirî endamê rêberiya PDK Îranê tevî 3 Kadroyên bi şiyan û jêhatî yên din bi navên: **Ebûbekir Îsmaîlî**, berpirsê komîteya bajarê Banê, **Refet Husêynî**, **Yedula Şîrînsoxen**, hatne şehîdkirin.

**09.12.1980:** Rêxistina Neteweyên Yekbûyî da îlankirin ku rejîma Îraqê şer li dijî Îranê dest pê kiriye û hate mehkûmkirin.
**10.12.1896:** "Alfred Bernhard Nobel", kîmyazanê mezin yê cîhanê di welatê Swêdê de koça dawiyê kir. Li ser wesiyeta wî binkeyek pêk hat ku her salê gelek xelatan di zaf waran de bi navê Xelata Nobelê didin mirovên zan û pispor ên cîhanê.

**10.12.1945:** Salroja derçûna Daxuyaniya Cîhanî ya Mafê Mirovan.

**12.12.1945:** Hikûmeta Neteweyî ya Azerbaycanê li parêzgeha Tewrêzê bi fermî hate ragihandin û hemû binke û paygehên wir ketin bin destê xelkê Azerbaycanê.

**12.12.1946:** Di yekemîn salroja avabûna Firqeya Demokrat ya Azerbaycanê de, Parêzgeha Tewrêzê ji aliyê hêzên hikûmeta navendî ya Îranê ve hate girtin û Firqe teslîm bû.
**13.12.1983:** Di şerekê tevî çekdarên rejîmê de, mixabin 8 Pêşmergeyên PDK Îranê li Hêza Zirêwar bi navên: Xelîl Xolamweysî, Rehîm Îbrahîmî, Ebdula Ehmedî, Ayat Huseynî, Şaho Muradî, Salih Deleyî, Ebas Bisaranî, Mîrza Ferecî hatin şehîdkirin.

**13.12.1987:** Mamosta **Elaedîn Secadî**, nivîskar û rojnamevanê Kurd koça dawiyê kir.

**13.12.2003:** Sedam Husên, Serok Komarê rejîma hiloşandî ya Bees a Îraqê li Lexmekê nepenî de li bajarê Tikrîtê ji aliyê hêzên hevalbend hate girtin.

**14.12.1946:** Çend Serok Eşîrên Kurd li dewedewê êrîşa arteşa rejîma Şahê Îranê bo ser hikûmeta Komara Kurdistanê çûne pêşwaziya hêzên Şah û emegdariya xwe ji bo Şah nîşan dan.

**15.12.1969:** Pêkhatina 2'emîn Kongireya PDK Îranê. Ev kongireye terzek derketin bû ji rêbaza PDK Îranê û Ehmed Tofîq weke berpirsê yekem yê partiyê hate diyarîkirin.

# Sosyolojıya Cıvak Û Edebıyata Kurdî

**Lokman Polat**

Li ser sosyolojiya civaka kurd û edebiyata kurdî çend pirtûk hatine nivîsîn? Bi qasê ku ez zanim li ser sosyolojiya edebiyata kurdî qet yek pirtûkek jî nehatiye nivîsîn. Li ser sosyolojiya civaka kurd pirtûkên ku hatine nivîsîn, pir hindik in. Ew jî çend pirtûkên nivîskarên Ewropî, pirtûkên Îsmaîl Beçîkçî, pirtûka Bazîl Nîkîtîn ya bi navê "Kurd" –Weşanên Deng- û pirtûka Zîya Gokalp ya bi navê "Analîza sosyolojîk ya eşîrên kurdan" e. –Weşanên Komal. Û ewqas.

Nivîskarên kurd her diçe zêde dibin, lêbelê piraniya nivîskaran bi edebiyatê re mijûl dibin û herweha çîrok, helbest û romanan dinivîsin. Hinek nivîskar jî bi karê lêkolînê re mijûl dibin, hejmara wan pir hindik e. Di nav nivîskarên kurd de (mexseda min nivîskarên kurd yên ji Kurdistana bakur in) yên civaknas tunin û berhemeke civaknasiyê ya bi kurdî hatibe nivîsîn tune. Li bakurê Kurdistanê berhemên ku bi kurdî hatine nivîsîn –çend lib netêde- hemû jî berhemên edebî ne, anku berhemên ku di nav kategoriya şaxên edebiyatê de ne. Pirtûkên felsefî, ramanî, sosyal civakî, siyasî û sosyolojîk yên bi kurdî li bakurê Kurdistanê tunin.

Lewre jî divê nivîskarên kurd yên civaknas pirtûkên sosyolojîk binivîsin, analîza sosyolojiya civaka kurd –bi kurdî- bikin. Divê weşanxaneyên kurdan netenê çîrok, helbest, şano û romanan biweşînin, herweha divê ew pirtûkên lêkolînî, lêgerînî, analîzî, ramanî, felsefî û nirxandinên civakî û dîrokî jî biweşînin.

Li ser edebiyata kurdî jî pirtûkên sosyolojîk nehatine weşandin. Tenê "Antolojiya Edebiyata Kurdî – M. Uzun" , "Antolojiya Çîrokên Kurdî – F. Cewerî" û "Antolojiya Helbestên Kurdî – A. Balî" hatine weşandin. (Pirtûkên antolojiyê pirtûkên sosyolojiyê nîn in.) Hêj antolojiya romana kurdî nehatiye weşandin. Min pirtûkeke nirxandina 20 romanên kurdî amade kir û bi navê "Bîst Romanên Kurdî" weşand. Ev pirtûk danasîn û nirxandina bîst romanên hilbijartî yên kurdî bû. Pirtûkeke sosyolojîk û antolojî nebû. Lêkolînvanên civaknas û edebiyatnasên kurd, divê hem sosyolojiya civaka kurd û hem jî sosyolojiya edebiyata kurdî binivîsin.

Divê rexnegirên edebî – anku edebiyatnas yan jî edebiyatzanên kurd – jî bi şêweyeke edebî berhemên edebiyata kurdî analîz bikin, binirxînin. Divê ew edebiyata kurdî li bêjingê xin, helçinin, kehb û gûzan ji hevûdu parve bikin. Yek radibe vegotineke – anlati- dinivîse û dibêje min romana herî baş nivîsî. Yekê din paşgotiniyan li pey hevûdu rêz dike û têde tu tevneke, tevgereke, bûyereke berbiçav, îmge, xeyal û hunandineke li gor pîvanên edebî tune û dibêje "kesekî heta niha romaneke weha nenivîsiye." (Bi taybetî jî kesên ku pirtûka xwe ya yekem diweşînin û navê çîrok, helbest yan jî romanê lêdikin, li gorê wan çîroka herî baş, helbesta herî baş, romana herî baş wî/wê nivîsiye. Ev kesên xwedî vê mentalîteyê berhemên ku berê hatine nivîsîn, naecibînin û weke nihîlîstan her tiştê baş bi xwe dest pê dikin. Yanî ew yên berê baş nabînin û yên ku wan nivîsiye baş û serketî dibînin.)

Helbet, heger ji alî edebiyatnas –yan jî edebiyatzan-an ve li ser pirtûkên edebiyata kurdî bi şêweyeke zanistî lêkolîneke dûr û kûr bê kirin, dê bê dîtin ku, di nav edebiyata kurdî de gelek pirtûkên ku li ser wan hatine nivîsîn ev çîrok in, lêbelê çîrok nîn in, gelek pirtûk hene ku weke pirtûkên helbestan hatine weşandin, lê helbest nîn in, û herweha pirtûk hene ku li ser wan



hatine nivîsîn ev roman e, lê roman nîn in. Lê, ev nayê wê maneyê ku pirtûkên kurdî yên baş ku bi rastî jî çîrok, helbest û roman in, tunin. Na hene û hinek jê gelek baş in.

Çiqas pir pirtûkên analîza berheman (ez dixwazim mizgîniyeke bidim xwendevanên kurd ku nivîskarê ciwan ê kurd Î. Seydo Aydogan li ser romanên kurdî pirtûkeke analîzê / nirxandinê amade kiriye. Bi hêviya ku ev pirtûka wî ya ji hêla mijara xwe ve gelek girîng e, di demeke nêzîk de bê weşandin û bikeve destê xwendevanên kurd.) pirtûkên sosyolojiya civakê û edebiyatê, nirxandina rexnegirên edebî derbikevin, ji bo edebiyat, çand û zimanê kurdî dê ewqas baş be. Bi saya pirtûkên weha dê edebiyat û civaka kurd baş bê nasîn û zanîn. Lewre jî di dema niha de herî pir pêwîstî bi pirtûkên sosyolojiya edebiyat û civaka kurd heye û herweha pêwîstî bi pirtûkên analîza çîrok, helbest û romanên kurdî heye.

# Fîlmê "Firmêskên Bêxal" Beşdarî Festîvala Filmên Kurdî Li Londonê Dibe

**Besam MISTEFA**, **HEWLÊR**— Piştî ku fîlma "Firmêskên Bêxal" li Başûrê Kurdistanê hate nîşandan, gelek guftûgo û gengeşe ji aliyê ravekar û bîner û hezkerên sînemayê ve di medyaya Başûrê Kurdistanê de li ser çêbû. Firmêskên Bêxal weke mêvan di Festîvala Abû Dabî li Mîrrîtiyên Hevgritî yên Erebî îsal beşdar bû û derhêner û aktera genc Ozî Ezîz û dekorîst û akterê kurd, Fuad Gemo di festîvala navborî de beşdar bûn.

Fîlma Firmêskên Bêxal dê di çaremîn Festîvala Fîlmên Kurdî li Londonê di 08.12.2006'an de, beşdar bibe. Lewend Omer ê derhêner û aktera jin Ozî Ezîz mêvanên festîvalê ne.

Firmêskên Bêxal 84 deqîqeyan dirêj e û




ev cara yekem e ku li Eworopa tê pêşandan. Derhênerê fîlmê Lewend Omer hewil dide ku pirsgirêkên civakî bi taybetî yên jin û gencan di fîlma xwe de çareser bike, di riya nîşandana çîroka keçeke kurd ku ji pêşveçûna herêma Kurdistanê û azadiya wê û yasa û destûra wê hêviya rizgarî û jiyaneke serbixwe dike.

Ji aliyekî din ve derhêner Lewend niha amadekariya fîlmek nû bi navê "Bûka Mezopotamiya" dike. Çîroka fîlma nû jî hûnandineke diramatîk e di navbera paşma û tirsê de, ji dastana Kawayê Hesinkar e, lê bi şêweyeke nûjen û hunerî ye û gelek akterên biyanî ji Meksîk û Amerîka û Almaniya tevî akterên lokal tê de rol digirin.

Çaremîn Festîvala Fîlmên Kurdî li Londonê dê 60 fîlman hembêz bike û Wezîrê Rewşenbîrî yê Kurdistanê Felekedîn Kakeyî, derhêner Mehdî Omêd, Behmen Qubadî û Hiner Selîm di wê festîvalê de amade dibin.

# HIŞMENDÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Hişmendî, şêwaza fikr û ramana ku bandorê li ser jiyana mirov ya rojane û civakî dike û di hemû mercên baş û xerab de mirov arasteyî hest û hizrên erênî an jî dike ye. Êdî îro di hemû qadên jiyanê de jî ev hizra erênî/neyinî wekî risteke mezin hişê mirov xurtir an jî qelstir dike.

Ligel vê yekê, îro fikra pozîtîv a ku wekî çavkaniya felsefeya rojhilatê tê dîtin, ji hêla hemû zanyarên dinê ve tê ecibandin û pejirandin.

Çi tiştê ku di xweza û gerdûnê de cih digirin, hemû di nav hevhîkarî û hevbandoriyekê domdar de hebûna xwe dikudînin. Ev hevhîkariya bênavber bi bandoreke mezin li ser cest û hestên mirov hukim dike. Fikreke erênî ya ku di mêjiyê mirov de disihire, rasterê bandorê li ser bedena mirov û tevger û livên wî/wê jî dike. Li gorî zanyarên norolojiyê, mêjiyê kesên ku di nav aramî û bextewariyê de dijîn, bi endorfînê (morfîneke dijwar) tê avzêkirin. Ev endorfîna avzê, ji morfînek tevzîner gelekî xurtir û bibandortir e. Êş û azarên mirov ên derûnî didebirîne. Hêz, lebat û aramiyê dide mirov. Xelek û şaneyên mêjiyê mirov tenduristir û bijûntir dike. Pergala bexşangî û pênegirtina mirov çêtir dixebitîne. Riya serkeftin û destkeftinê gelek caran di bikaranîna vê pergalê re derbas dibe. Kesên ku bi vê hişmendiyê nasdar dibin, ewleyî û xweşbîniya xwe winda nakin û her gav bi wêrekî di nava civakê de dibin xwedî vîn û pêşdestî (înîsiyatîf). Kesên ku xwediyê vê hişmendiyê bin, her wiha bi xwarin û vexwarinên pozîtîf xwedî dibin; kar û barên pozîtîf dikin; bi heval û hogirên pozîtîf re didin û distînin. Mirovahî, bi saya vê hişmendiyê (fikra pozîtîf) û tevgerên erênî gihîştiye merhaleyeke payedar.

Her mirovê/a xwedî hiş û raman neçar e ku der barê arîşe, pirsgirêk û pêdiviyên mirovahiyê de hişyar be û bi qasî ramanwer û zanyarekî, bi dilsozî û berpirsiyarî tevbigere. Berpirsiyariya her mirovî/ê, çendî ku bi qasî kesên hestyar û pejnkar giran be jî, her gav her kes nikare xwe bide ber vî barî û li hemberî bi rewşa heyî helwest bigire. Belê li aliyê din, hin kesên ku di bin fikr û hizra pozîtîf de dimînin û alîkariya vî karî dikin jî hene. Di her dem û domanên dîrokî de ew mirovên hişmend û ramanwer, bi rewşa heyî qayîl nebûne. An li hemberî neyînî û nebaşiyên demê derketine an jî ji bo guherîn û veguherînên erênî têkoşiyane û gelek dahên û nûvedaniyên nû pêk anîne.

Kesên ku bi vîna xwe tevdigerin û bi hemû dilsozî û daxwaziya xwe têdikoşin, ji kelem û astengiyên pêşberî xwe ne pelikandine; çavên xwe ji êrîş û darizandinên bêyom û nerewa nekutkutandine. Xwe ji ber binbariya civakî û berpisrsiyariya mirovahiyê nedane alî. Berevajî wê, wan bi xwe, xwe dane ber kar û barên giran. Bi jarî, xizanî û belengaziya dinê rû bi rû mane. Tûşî bindestî û bintûtetiya demê bûne. Zikekî wan têr, deh birçî bûne. Bêmal, bêhal û bêheval mane. Ji zêç û zarok û hevserên xwe bûne. Leqayî jiyaneke bixem û têrtehdayî hatine. Hatine girtin, darizandin û afarozkirin. koçkirin mirin û dardekirin bûye para wan… Bi kurtayî wan tu carî ber xwe nedîtiye. Belê ji vê rewşa xwe ya payeberz zivêr û bêzar nebûne. Lewre wan, biryara jiyana xwe ya birûmet bi vîna xwe hilbijartine û pejirandine.

Hişmendiya mirov li gorî mercên jiyanê û pêwendiyên civakî û dişêwe û dirûv digire. Belê her mirov jî dîsa bi meyldarî û lêgerînên xwe yên kesane, bi hişmendiyeke taybet û xweser tê rapêçandin. Ev hişmendiya jênager, mirov an arasteyî liv û bizavên erênî an jî tevgerên neyinî dike. Hişmendiya ku ji fikra pozîtîf dinime, mirov ber bi nirx û hêjahiyên bêhempa ve dike; mirov di çavê civakê de birûmet û serbilintir dike. Belê hişmendiya ku ji fikrên neyinî pêk tê, her gav mirov ber bi riya şaş ve dike û wî/wê di çavê civakê de bê qedir û serberjêr dike.

Derfet û mercên îroyîn, tu car du hêjahiyên bedew bi hev re nadin mirov. An dewlemendiya aborî û ligel wê bêrêtî, bêxemî, bêxîretî û bêqîmetiyê; an jî dewlemendiya derûnî û li gel wê jî rûmetdarî, gelperwerî, mirovhezî û qedirnasiyê dide mirov. Hilbijartina herdu tiştan di destê mirov bi xwe de ye. Werkî ku Leo Buscagliya jî dibêje: “Jiyan dişibe wêneyên ku tu bi destê xwe xêz dikî. Kaxiz, firçe pênûs û semax hemû di destê te de ne. Tu bi xwazî, tu yê wêneyê bihuştekê xêz/çê bikî û bi aramî tê de rûnê. Û tu bi xwazî jî tu yê wêneyê dojehekê çê bikî û di nav de xerq bibî.

Ramanwerê nemir Mewlana Celaledînê Romî jî dibêje:

“Tu ji fikr û ramanekê pêk hatî yî / Ji bilî wê, tu tenê goşt û hestî yî
Heke tu di gulê de bifikirî, tu yê bibî gulistan/ Heke tu di striyan de bifikirî, tu yê bibî strîdar.”

**Kaniya Helbestan**

**Letîf Epozdemir**

## EVÎÎNÊ KUŞTİN

Dayê baran e
/bêhna mirinê tê,
/ evr bûne mij û moran,
/pêşna qederê tê
Qompare rijiyan
/bi hezaran însan
/bê nefes û can
/li erdê dirêj man.

Jehrî dibare /
bi bêhna sêvan
/reş e asîman/
zarok li erdê bê derman.
Gûl venabin
/piranî zarok in
/jehrî rijya ser singê wan
/mirin e êdî para wan.

Mîrata mirinê
/vê carê
/bê xeber hat
/bi ser me ve girt
/bê rehm û eman.
Bayê sibê hê sekinî/
Li hawîr bêhna sêvan
/sêv ne ew sêvên xwarinê
/lê dermanê mirinê.

Can westiya
/jiyan rawestiya
/ax dikele bi xwînê
/dawî hat li evînê.
Keçeke çavgeş
/di ricife bi girîn/
dibêjê hewar e dayê/
ez mir im bi vê bayê

Min bixe nava nivîn
/ku bikeyê êşa min
/qeda bi vê qeder ê/
çi karê me li dinê
Li ber singê kalekî
/kûrekî dû sê mehî/
di cemide canê wî
/lê tuneye çara wî.Mirin hat
mala kir vala

/hemû kes bê mecal in
/hey dinyaya derewîn
/tu binêr ev çî hal e.
Hat karwanê mirinê
/di bare jehrî li jor
/neyar hate xezebê
/dîsa bû har û çavsor

**Adar Jiyan:**

# Ji Bo Azadî Û Serfiraziya Gelekî, Ferzîndeya Bingehîn Zanîn Û Zanyarî Ye

**Hevpeyvîn: Dara Natiq**

***Adar JIyan kî ye:***
***Di sala 1962'an de li gundê xwe Dengiza ku bi ser Stewra Mêrdînê ve ye, hatiye dinyayê. Dibistana Seretayî li gundê xwe xwend. Dibistana navîn li Stewrê, peyre jî Amadeyiya Îmam-Xetîbê a Mecanî li Mêrdînê, Entîtuya Perwerdehiyê li Ruhayê kuta kir. Sê salan Li Beşa Zankoya ziman, dîrok û erdnîgariyê Beşa Zimanê Fransî û Wêjeyê xwend, belê ji ber sedemên ramyarî nivco hişt. Gelek caran hat girtin û darizandin. Wekî mamosteyê polê hate wezîfedarkirin. Li gelek bajaran geriya û hate mişextin. Vê gavê mamoste ye. Heta niha di gelek kovar û rojnameyên Kurdî û Tirkî de nivîsên wî hatine weşandin. Wî di Azadiya Welat, Agirî, Jiyana Rewşen, Tîroj, Vesta, Hîwa, Kevan, Bîrnebûn, Nûbihar,Zend, Kovara W, Tûrik(Pêveka Azadiya Welat)Gulistan û Rojevê de nivîsandiye.***

**Berhemên Wî**

***Seyrê* Destan** (kurdî)
***Raveya Peyvan*** (Kurdî) (Weşanên Pêrî)
***Ziman û Jiyan*** (Kurdî) (Weşanên Pêrî)
***Sekeftina Morîstanan*** (Fabl/rist)Kurdî) (Weşanên Pêrî)
***Şevên Koçber*** ( Çîrok, Kurdî) (Weşanên Pêrî)
***Nêzîkahîtêdanek Perwerdekar Ji bo Arîşeyên Perwerdehiyê*** (Tirkî)
***Mamoste Bi Hezkirinê Tê Nasîn*** (Tirkî)

**HEVPEYVÎN
BI ADAR JIYAN RE**

**Bi baweriya we rewşenbîr divêt xwediyê çi pênaseyekê bin?**

Ji bo vê pirsa we ya girîng zor spas. Belê berî ku ez besiva vê pirsê bidim, dixwazim tiştekî bibêjim. Hûn dibêjin "bi baweriya we…"Carekê navlêkirin û ravekirina nasnameya rewşenbîrekî/ê ne li gorî bîr û baweriya kesan; li gorî pîvang û formulasyonên zanistî û zanyariya civakî têne danîn û navandin. Îcar divê pêşî em vê pîvanga ku rist û peywireke mezin li wateya rewşenbîriyê bar dike ji nêz ve binasin û li gorî wê tevbigerin.

Carekê çendî ku rerwşenbîr ji nav gelekî an jî civakekê derdikeve û xwediyê nasnameyeke neteweyî be jî, ew xwediyê nasnameyeke gerdûnî ye. Rewşenbîr ew e ku her gav têkilî pirsgirêkên mirovahiyê dibe û ji bo arîşe û gelemşeyên gerdûnî li çareseriyê digere. Rewşenbîr, him suxredar û bargirê civaka xwe û hem jî berpirsiyar û peywirdarê serdema ku tê de dijî ye. Pênasiya rewşenbîr a sereke têkoşerî ye. Têkoşeriya li hemberî neyinî û



xerabiyê ye. Têkoşeriya li nik bindestî û bênasnmayiyê ye. Têkoşeriya aştî, azadî û yeksaniyê ye. Têkoşeriya maf, dad û demokrasiyê ye.

Rewşenbîr, divê ji her kesî bêtir xwediyê pejnkarî û dildariyeke bêlayan û bêdeman be. Ango, divê ew bi nasnameya xwe ya gerdûnî derkeve qada jiyanê. Û li her der û deverê êş û azarên mirovahiyê di dil û mêjiyê xwe de bihisîne û çareseriyê wan bigere.

A rast, divê xislet û taybetiyên rewşenbîr tenê bi van çend xalan neyên sînordarkirin!

***Hûn rewşenbîriya kurdî bi ser çend qonaxan de parve dikin?***

Bi ya min divê, tu rewşenbîr an jî ronakbîr tenê bi netewe, nîjad an jî civaka xwe neyê nasîn. Rewşenbîrê/a ku ji hêla civaka xwe ve nehatibe nasîn û pejirandin, dê ji hêla gel û civakên din ve jî nehatibe nasîn. Bi rastî ez tu car naxwazim rewşenbîriyê (çi rewşenbîriya kurdî û çi jî wekî din) cihê cihê bisenifînim û têgiheke wisa girîng ji wateya wê ya rastîn bi dûr bixim. Lewre wateyeke rewşenbîriyî ya resen û xweser heye. Û ev wate jî li tu qonax û radeyên din nayê edilandin. Rewşenbîrî ne wekî pîşeyekî rojane ye ku mirov bikaribe wî li gorî dilê hin kesan bide navandin û xebitandin. Pîvanga rewşenbîriyê ne zanebûn tenê ye; her wiha cehd û hewldanên ku xwe dispêrin zanînê jî dixwaze. Ji bo wê, rewşenbîrî nayê parvekirin. Ew bi xwe qonaxeke payeberz ya hevpar e. Û her kes jê sûd û fêdeyê werdigire.

Yanî rewşenbîriya kurdî, tirkî, erebî, farisî nîn e; belê rewşenbîrên ku bi eslê xwe kurd in, tirk in, ereb in, faris in, İngilîz in, fransî ne, ermenî ne hene. Ew jî hemû tenê wekî rewşenbîr têne nasandin.

Heke mirov behsa rewşenbîrên ku bi eslê xwe kurd in dikin, gelek rewşenbîrên hêja, binav û deng û bêhemsal ji nav kurdan derketine û derdikevin jî. Lê mirov dikare nivîskarên kurd wekî çend nifşan bisenifîne. Ew jî; yek, yên ku bi kurdî nizanin û doza zimanê kurdî dikin; du, yên ku bi kurdî dizanin û qet xwe li kurdî nakin xwedî û bi zimanê biyanî dinivîsin; sê, yên ku bi kurdî dizanin û bi kurdî dixwînin û dinivîsin… Bê guman nifşê ku hêviyê dide ev nifşê sisiyan e ku him ji bo gelê xwe û him jî ji bo mirovahiyê tiştekî xêrê dike.

Nivîskarê ku bi zimanê xwe yê neteweyî berhemên xwe dihone û diyarî civakê dike, neteweyekî diparêze. Girêdayê wê jî çand, huner û wêjeya xwe diyarî mirovahiyê dike. Parastina çandekê, xizmetê ji parastina hemû nirxên mirovahiyê re dike û wêjeya dinê dewlementir dike.

***Nirxandina we ji xebata rewşenbîrên me yên Kurd derheq nasyonalîzmê çawa ye?***

Nasyonalîzm, parastina pergala nîjadperestiyê ye. Pergala nîjadperest, nivîskarên nijadperest digihîne û kîn û rikdariya navbera gel û neteweyên din kûrtir û dijwartir dike. Ev yek ji bo rewşenbîrekî ne pêkan e. Belê ji bo nivîskarekî nîjadperest guncan e. Ez bi xwe ne di vê baweriyê de me ku nivîskarekî/e bindest bikaribe xwe ragihîne radeya nîjadperestiyê. Lewre ji bo nîjadperestiyê, hewcetî bi hin tiştan heye. Ango divê pêşî nîjada wî/wê yekîtîya xwe pêk anî be ku bikaribe di qada cîhanê de doza serdestî û desthilatdariya nîjada xwe bike. Her çendî ku ev feraset dûrî xislet û taybetiyên rewşenbîriyê be jî, ji bo nivîskarên kurd îro zêde ne pêkan e. Ji kîjan neteweyê dibin bila bibin, dibe ku hin kes bi hestên nîjadperestî tevbigerin û xwe bi wî awayî bidin nasîn. Belê rewşenbîrên kurd, bi giştî hê nebûne nîjadperest. Û divê nebin jî. Lewre nivîskarên ku nîjadperest bin, nikarin bibin rewşenbîr. Jixwe ku rewşenbîr bin, wê çaxê ne nîjadperest in.

***Bi baweriya we rewşenbîrên me yên Kurd heya çi qasekî karîne xwedî bandor bin li ser doza gelê me?***

Bêguman doz û daxwaza gelê kurd

azadî û serfirazî ye. Ev jî tiştekî rewa ye. Ango ne tiştekî ji sêrêder û derehiqûqî ye. Heta niha çi hatiye serê gelên bindest, ji ber nezanî, bêtifaqî û sersariya wan e. Ji bo azadî û serfiraziya gelekî, ferzîndeya bingehîn zanîn û zanyarî ye. Ev jî tenê bi helwest û hewldana rewşenbîrên rastîn bi dest dikeve. Wekî hemû gelên bindest, gelê kurd jî bi salan e ku bi pirsgirêkên xwe yên navxweyî mijûl dibe. Her seriyekî sewtek jê diçe. Yekîtî û şêwirmendiya neteweyî/navxweyî heq bûye. Ev bar û peywir jî teqez li ser rewşenbîrên kurd dimîne.

Wekî ku me pêşî jî got, divê rewşembîr li hemberî hemû şer û pevçûnên navxweyî û navneteweyî derbikeve. Divê pêşî ji bo yekîtiya civaka xwe û peyre jî bo aştî û aramiya cîhanê tevbigere. Heke rewşenbîrên ku bi eslê xwe kurd in vê peywirê hildin ser milên xwe û peywira xwe ya dîrokî bileyîzin, dê pêşî bandoreke mezin li ser yekîtî û ahengiya gelê kurd û peyre jî li ser gelên herêmê û mirovahiya cîhanê bikin.

***Rewşenbîr dikare bibe xwediyê îdolojjiyeke taybetî?***

Tu mirov nikare bê bîrdoz hebûna xwe bikudîne. Kesên ku bîrdoza wan tune be; hebûna wan jî tune ye. Ji bo wê teqez divê bîrdozeke rewşenbîr hebe- Ji xwe heye jî- Belê ev bîrdoz ne girêdayî ramyariyeke demdemî û rojane ye. Heta bêbes domdar, berfireh û zansitî ye. Yanî bîrdoza rewşenbîr zanîn bi xwe ye. Bîrdoza rewşenbîr ne ji bo cihêwazî û pevçûnên navxweyî û navneteweyî ye; berevajî wê, ji bo yekîtî û lihevkirina civakê û tevê mirovahiyê ye.

***Nebûna zimanekê hevgirtî yê Kurdî çi bandorek li ser pêvajoya rewşenbîriya Kurdî hebûye?***

Tunebûna zimanekî hevgirtî, xwe dispêrê gelek sedem û egerên dîrokî û civakî. Carekê zimanê kurdî bi sedan sal hatiye astenkirin û qedexekirin. Heta ku zimanek nebe zimanê zanîn û perwerdehiyê û ber û berhemên cur bi cur bi wî zimanê neyên nivîsandin, yekîtiya wî zimanî pêkan nabe. Nivîskarî û rewşenbîriya kurdî hê nû nû bi ser xwe ve tê.

Divê em ji nebûna zimanekî hevgirtî bêtir, behsa girîngiya hebûna zimanê hevgirtî bikin. Ji bo vê yekê merc û derfet hatine afirandin. Here nivîskar bi zaravayê xwe; belê bi awayekî bi rêk û pêk bi kar bînin, dê yekîtiya hevgirtina ziman û pêwendiya navbera zaravayan xurtir û hêsantir bibe. Wê çaxê, gel jî dê hêdî hêdî arasteyî zimanê xwe yê hevgirtî bibe.

Ji bo wê, hewce ye ku nivîskar û rewşenbîrên kurd, vê pêvajoyê lezgîntir bikin.

***Bi hizra we civaka me heya niha kariye saziyeke serbixwe a rewşenbîrî çê bike ku di wir de arîşe û girêpêçkên civakê bi awayekî zanistî bixe ber bas û lêkolînan?***

Heta îro gelek sazî û mezrîngeyên siyasî, çandî û hunerî hatine damezrandin. Û her yek ji wan li gorî hêz û taqeta xwe suxre û peywira xwe pêk tîne. Belê heta niha tiştekî berbiçav ku ji yekîtî û hevgirtina neteweyî ya giştî re bibe hincet zêde pêk nehatiye. Di vî warî de jî kêmasiyeke mezin xwe dide der. Xebat û xizmetên ku têne kirin jî, cih bi cih û demdemî ne. Arîşe û pirsgirêkên heyî, bi dorfirehî û domdarî nehatine dahûrandin.

Pêdivî bi saziyeke ku bikaribe hemû rewşenbîrên kurd di bin banê saziyekê de li hev bicivîne û wan arasteyî lêkolîn û dahûrandinên zansitî bike, heye. Dê ev yek bandorê li ser çareserkirina pirsgirêkên hevpar ên neteweyî jî bike.

***Ji bo avakirina saziyeke wiha serbixwe hewce ye ku çi gavek bên avêtin?***

Ji bo avakirina saziyeke wiha, hewce ye ku pêwendî, şêwirmendî û danûstendineke xurt pêk were. Hewce ye ku, her kes ji cem xwe de piştgirî û alîkariyê bide pêşnûmayeke wisa girîng. Hewce ye ku her rewşenbîr û nivîskar nefsbiçûkiyê bike û xwe ji quretî û pozbilindiyên bêkêr û bêxêr pak bike. Hewce ye ku kes nebêje “ez” ê bikim; bibêje “em” ê bikin.

***Pêwendiya navbera rewşenbîr û deshilatê divêt bi çi awayekê be?***

Pêwendiya navbera rewşenbîr û desthilatdaran, pevçûn e. Pevçûna ramyarî ye. Her çend ku rewşenbîr, li hemberî şer û pevçûnên bêyom û bêoxir be jî ew her gav bi desthilatdaran re di nav şer û pevçûnên bîrdozî, hizrî û derînî de ye.

Rewşenbîr nikare bi desthilatdaran re li hev be. Rewşenbîr û desthilatdar du hêzên pozber û lêkneker hebûna xwe bidomînin. Divê rewşenbîr tu car eman û demanê nede kes û hêzên desthilatdar û bi wan re li hevdû neyê. Jixwe sedema hebûna rewşembîr, lihemberderketina desthilatdariyê ye. Ne lihevhatina wî/wê ye.

---

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê ya nû, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9’ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9’ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9’ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 3 | | | 5 | 9 | 8 | 6 | 7 | 2 |
| | 2 | | 7 | | 4 | 1 | | |
| | | | | 1 | 2 | | 5 | 3 |
| 8 | 6 | | | 7 | | 3 | | 5 |
| 2 | | 7 | 3 | | 5 | | | |
| 4 | 5 | 3 | | 2 | | | 9 | 6 |
| 1 | 4 | | 2 | | | | 6 | 7 |
| 9 | | 2 | | | 6 | 5 | | 8 |
| 5 | | 6 | 9 | | 7 | 2 | 1 | 4 |

## Bersiva Sudoku a Hejmara 52’an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 8 | 9 | 4 | 6 | 7 | 2 | 1 | 3 | 5 |
| 3 | 6 | 1 | 8 | 5 | 4 | 7 | 9 | 2 |
| 2 | 5 | 7 | 1 | 9 | 3 | 8 | 4 | 6 |
| 4 | 2 | 6 | 5 | 8 | 9 | 3 | 7 | 1 |
| 7 | 8 | 5 | 3 | 6 | 1 | 9 | 2 | 4 |
| 1 | 3 | 9 | 2 | 4 | 7 | 6 | 5 | 8 |
| 6 | 4 | 3 | 7 | 1 | 5 | 2 | 8 | 9 |
| 5 | 7 | 8 | 9 | 2 | 6 | 4 | 1 | 3 |
| 9 | 1 | 2 | 4 | 3 | 8 | 5 | 6 | 7 |

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Li Farqînê Hejmara Xwendekarên Bi Jehrketî Derket 150 Kesan



Li gorî nûçeyekê ku di malpera Netkurdê de hatiye weşandin, li bajarê Diyarbekirê navçeya Farqînê, 150 xwendakarên dibistana "Demirkuyu" û "Eşme Taşima"yê li ser fikara bijehrketinê rakirin nexweşxaneya dewletê a Farqînê. Heta niha 40 ji xwendekaran ji nexweşxaneyan derketine û çûne malên xwe.

Qeymeqamê Farqînê "Veysel Beyru" ragihand ku 325 xwendekar li dibistanê hebûne û wan piştî xwarina nîvroyê dest gilî kirine." Tê ragihandin ku zarokan li dibistanê mirîşk, bilxur û şêranî xwarine. Heta niha di rewşa tenduristiya zarokan de talûkeyek tune, lê qeymeqam Veysel Beyru dibêje wan hejmara doktoran zêde kiriye."

# Îranê Pileya Duyem Li Warê Îdam Di Cîhanê De Tomar Kir




Roja 10'ê Desamberê (19'ê Sermawezê) Roja Cîhanî ya Mafê Mirovan e. Bi vê boneyê çalakên mafê mirovan, Rêxistin û navendên mafê mirovan cehd û xebatê dikin di welatên ku li vê derheqê de kêmasî hene û mafê mirovan tê Pêpeskirin, ji cîhanê re bidin nasandin. Îraniyan jî li derveyî welat gelek xwenîşandan lidarxistin û cinayetên Komara Îslamî bi cîhanê re nîşandan.

Dr. Behram Bêygdilî, berpirsê koma Berevanî ji girtiyên siyasî di hevpeyvîneka bi Dengê Amerîkayê re da zanîn ku ji 198 welatên cîhanê, 138 welatan cezayê îdamê hilgirtine, lê 60 welat hêj birêve dibin.

Wî herwiha da zanîn ku di sala 2005'an de li Îranê 106 kes hatine îdamkirin û di sala 2006'an de jî heya niha 130 kes hatine îdamkirin ku piraniya wan girtiyên siyasî bûne û her du salan jî Îranê piştî Çînê, pileya duyem tomar kiriye.

# Derewzanîna Nûçeyeke Ajansa "Peyamnêr"ê

Roja pêncşem, 07.12.2006'an, Ajansa Nûçeyan ya "Peyamnêr"ê nûçeyek weşand ku endamên Bakûra Rojhilatê Kurdistanê ku weke baskê **Şimalê** hatine naskirin, di daxuyaniyekê de ragihandine ku sêyemîn bask e ku ji Partiya Demokart cuda bûne û li bin navê Partiya Demokarat ya Kurdistana Îranê (Ararat) dest bi rêxistin û organîzekirina xwe kiriye.

Em di vê derbarê de hemû aliyekê agehdar dikin ku tiştek bi vî navî ne li berê û ne niha jî ji me re naskirî nine û ev pirse tu pêwendiyek bi PDK Îranê nine û ew kesên ku ew daxuyaniye dane Ajansa "Peyamnêr"ê, endamên PDK Îranê nebûne.

# Pîlana Şandina Madeyeke Xeternak Bo Herêma Kurdistanê



Kurdistan Raport – Egera hinartina madeyke xeternak û cihê tirsê bi navê **KRAK**ê ji bo herêma Kurdistanê di holê de ye.

Li doma siyasetên welatên cîran derheq Herêma Kurdistanê, rejîma Îranê madeyeke bêhişker û pir bixeter bi navê "KRAK"ê li herêmên Kurdakincî yên Kurdistana Îranê de belav kiriye û zaniyarî eşkere dikin ku pilaneke darêtî bo veguhastin û anîna vê madeyê bo herêma Kurdistana azad di holê de ye.

Girûpek ji qaçaxçiyên madeyên bêhişker zêdetir ji 50 kîlo ji "KRAK"ê bi merema veguhastinê bo herêma Kurdistanê anîne bajarên sersînor ên herêma Kurdistanê.

Çavkaniyan îşare bi vê kiriye ku ev madeye li bajarên Şino, Pîranşar û Serdeştê bi kar hatiye û çend haletên vê nexweşiyê haitne dîtin. Ev madeye zor giran û buhadar e û dûkeleke sipî weke ya cixarê heye û nîşaneyên vê nexweşiyê bi zûyî li ser kesê/a bikarhîner eşkere dibin.

Çavkaniyên bizîşkî didin zanîn ku madeya bêhişker a "KRAK"ê bi awayekî lezgîn kar ji malên mejî dike û ger carekê bihê bikaranîn, cihên hesas û hestiyar yên mirov tûşî xuriyanê dike û diverînît û piştî salek ji bikaranîna wê, mirov dikuje

# Di Hinek Cixareyan De "Polonium 210" Heye



Piştî lêkolîna zanyarên Akademiya "Vlaam" a Qralîyeta Beljîkayê, derket holê ku madeya radyoaktîf "polonium 210" ya ku ji bo kuştina ajanê rûsî "Alexander Litvinenko" hatibû bikaranîn, di hinek cixareyan de jî heye û ev maddeye ku dibe sedemê nexweşîna bêwext a dil û nexweşîna qanserê.

Li gor lêkolîna zanyaran a li ser mîz û xwîna hinek cixarekêşan, derketiye holê ku ev madeya radyoaktîf a bi navê "polonium 210", ne tenê xesarê dide cigerê, herweha dikare bi hêsanî tevlî xwîna meriv jî dibe. Biqasî zereyeke madeya radyoaktîf "polonium 210" a ku bi hêsanî dikare bikeve hundirê meriv, weke sedemê nexweşîna dil, nexweşîna cigera reş û a sipî û nexweşîna kîsika mîzê tê nîşandan. Lê tê gotin ku gramek ji vê madeyê dikare bibe sedemê mirina 50 milyon merivan û 130 gram jî dikare bibe sedemê mirina hemû merivên li rûyê erdê.